| | | | |
|---|---|---|---|
| xêzkenar | taç çizgisi | ligne de touche | touch line, sideline |
| goşe, korner | korner | coin, corner | corner |
| devera kornerê | korner alanı | coin de corner | corner arc |
| darê alaya goşeyê | köşe bayrağı direği | poteau de drapeau de coin, de corner | corner flagpost |
| alaya goşeyê | köşe bayrağı | drapeau de coin, drapeau de corner | corner flag |
| top, gog | top | ballon | ball |
| dadwer | hakem | arbitre | referee |
| dadwerê alîkar | yardımcı hakem | arbitre assistant | assistant referee |
| dadwerê çarem | dördüncü hakem | quatrième arbitre, arbitre remplaçant, quatrième officiel | fourth official |
| devera teknîkî | teknik alan | surface technique | technical area |
| serwêrê teknîkî | teknik direktör | directeur technique | technical manager |
| antrenor | antrenör | entraîneur | coach |
| lîstik, yarî | oyun | jeu | play |
| sîstema lîstikê | oyun sistemi | système de jeu | playing system, playing formation |
| dema lîstinê | oyun süresi | temps de jeu, durée de match | game duration |
| dirêjkirin | uzatma (ekstra zaman) | prolongation | extra time |
| dema lêzêdekirî | uzatma (kayıp zaman için) | temps additionnel | additional time, added time |
| destpêka lîstikê | oyunun başlaması | engagement, coup d'envoi | kick-off |
| lîstikvan, yarîker | oyuncu | joueur | player |
| fûtbollîz | futbol oyuncusu | footballeur, joueur de football | football player, soccer player |
| guhertina lîstikvanan | oyuncu değişikliği | changement de joueurs, remplacement | players' replacement, substitution |
| lîstikvanên cîgir | yedek oyuncular | joueurs remplaçants | players' substitutes |
| fûtbollîzê cîgir | yedek futbolcu | footballeur remplaçant, suppléant | football players' substitute |

# Paşgirên kurdî
# -II-

**Amadekar : Reşo ZÎLAN**

**-end / -yend** : Bi alîkarîya vê paşgirê hem ji navdêr û hem jî ji qurmên lêkeran navdêrên nû tên çêkirin.

Nimûne: nav**end**, rev**end**, za**yend**, gov**end**

**-ende / -inde** : Bi vê paşgirê hem ji navdêr û hem jî ji rengdêr û qurmên lêkeran navdêrên nû tên çêkirin.

Nimûne: şerm**ende**, berf**ende**, gerîn**ende**, bal**inde**, fir**inde**, gaz**inde**, ay**inde**

**-emenî** : Navên koma tiştên ku ji bo mebestekê têne bi kar anîn nîşan dide.

Nimûne: sot**emenî**, xward**emenî**, teq**emenî**, sard**emenî**

**-er / -yer** : Bi alîkarîya vê paşgirê hem ji navdêr û hem jî ji qurmên lêkeran navdêrên nû tên çêkirin.

Nimûne: koç**er**, rax**er**, bû**yer**, parêz**er**, nivîs**er**, têkoş**er**, bîn**er**, firoş**er**

**-eve** : Paşgireke lêkerî ye û timî bi dawîya lêkerê ve tête girê dan û maneya "dîsan, careke din" dide lêkerê.

Nimûne: geran**eve**, ketin**eve**, çûn**eve**, dîtin**eve**, kirin**eve**

**-ê** : Ji bo forma bangkirina navdêrên bi zayenda mê ya yekhejmar e.

Nimûne: keç**ê**!, day**ê**!, et**ê**!, bûk**ê**!, gêj**ê**!, dîn**ê**!

**-êr** : Bi alîkarîya vê paşgirê hem ji navdêr û hem jî ji qurmên lêkeran rengdêr yan navdêrên nû tên çêkirin.

Nimûne: qul**êr**, dil**êr**, pan**êr**, werz**êr**

**-ezar "bnr " -zar** : Paşgira **–zar** bi maneya cih e, cihê lê çandina tiştekî ye. Tîpa "e"yê ji bo pevgirêdanê ye. Bi alîkarîya wê rengdêr yan jî navdêr tên çêkirin.

Nimûne: şerm**ezar**, teng**ezar**

**-ewar** : Bi vê paşgirê ji navdêrekê rengdêrek tête afirandin û maneya "wekî, mîna, fena, şibhê" dide peyvê.

Nimûne: bend**ewar**, bext**ewar**

**-ewarî / -warî** : Bi alîkarîya vê paşgirê ji navdêr yan jî ji rengdêrekê navdêreke nû ya abstrakt tête çêkirin .

Nimûne: kurd**ewarî**

**-ewer** : Bi vê paşgirê ji navdêrekê rengdêrek yan jî navdêreke nû tête afirandin.

Nimûne: bîr**ewer**, bext**ewer**, can**ewer** /cinawir

**-firoş** : Ev paşgira ji lêkera "firotin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê firotinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: gul**firoş**, zembîl**firoş**, xwe**firoş**, bela**firoş**, pirtî**firoş**

**-gar** : Ev paşgir maneya "kesê ku dike, kesê ku karekî tîne cih" dide peyvê.

Nimûne: pî**gar**, amoj**gar**, roj**gar** (ev paşgira di vê peyvê de bi wext re mane guhartîye).

Peyva rojgar di maneya "serdem, zeman, dewran, dewr"ê de ye.

**-geh** : Ev paşgir maneya "cih, dever, şûn, war" dide.

Nimûne: seyran**geh**, havîn**geh**, şar**geh**, bin**geh**, tav**geh**, çêre**geh**, ber**geh**, kêlan**geh**,

war**geh**, zanîn**geh**, çiv**geh**, hêwir**geh**

**-gelan** : Ev paşgir maneya "kom, piranî û pirhejmarî"yê dide peyvê.

Nimûne: xezûr**gelan**, xinamî**gelan**, moz**gelan**

**-ger** (I): Paşgira ji lêkera "gerîn / geriyan"ê ye û maneya kesê / tiştê ku bi karê gerînê radibe dide peyvê.

Nimûne: şev**ger**, ba**ger**, ban**ger**, şop**ger** / rêç**ger**, pey**ger**, temaşe**ger**, dad**ger**

**-ger** (II): Ev paşgira maneya "kesê ku bi wî karî radibe" dide peyvê û navê pêşeyekê nîşan dide.

Nimûne: hesin**ger**, zêrîn**ger** / zêr**ger**, kîmya**ger**

**-gêr** : Paşgira ji lêkera "gêrîn (gêran / gêrandin)"ê ye û maneya "kesê ku karê binavkirî digêrîne, dike" dide peyvê.

Nimûne: şoreş**gêr**, wergêr, mey**gêr**, govend**gêr**, çilin**gêr**, pîlan**gêr**, kar**gêr**, civat**gêr**, dolab**gêr**

**-gez** : Paşgira ji lêkera "gestin, gezîn, gez kirin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê gestinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: pel**gez**

**-gihan** : Paşgira ji lêkera "gihandin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê gihandinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: nûçe**gihan**

**-gir** : Paşgira ji lêkera "girtin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê girtinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: masî**gir**, saw**gir**, alî**gir**, xû**gir**, ho**gir**, dil**gir**, mîrat**gir**, rexne**gir**, rê**gir**, pişt**gir**, mal**gir**

**-gîr** : Paşgira ji lêkera "girtin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê girtinê radibe" dide peyvê. Li ser forma xwe ya kevn maye.

Nimûne: av**gîr**, pêş**gîr**, ber**gîr** (bar**gîr**, bergîl), kef**gîr**

**-gîn** : Ev paşgir maneya "tijî, tijî bi ... "ê dide peyvê.

Nimûne: lez**gîn**, xem**gîn**, miz**gîn**, xwaz**gîn**, şerm**gîn**, saw**gîn** / sehim**gîn,**

**-go** : Paşgira ji lêkera ”gotin”ê ye û maneya “kesê / tiştê ku bi karê gotinê radibe” dide peyvê.

Nimûne: rast**go**, bilind**go**, xweş**go**

**-gon / -gûn / -gwîn** : Maneya ”reng” e.

Nimûne: av**gon** / ar**gûn**, ar**gon** / ar**gûn**, al**gon**, genim**gon** / Genim**gûn**, gul**gon**

**-guhêz** : Paşgira ji lêkera ”guhastin (neqil kirin)”ê ye û maneya “kesê / tiştê ku bi karê guhaztinê radibe” dide peyvê.

Nimûne: xeber**guhêz**, war**guhêz**, bar**guhêz**

**-hêl** : Paşgira ji lêkera ”hêlan (hilanîn, hiştin, terikandin, terkkirin)”ê ye û maneya “kesê / tiştê ku bi karê hiştinê radibe” dide peyvê.

Nimûne: cî**hêl**, war**hêl**, meydan**hêl**, jin**hêl**, mêr**hêl**, êl**hêl**, gund**hêl**, pez**hêl**, dê**hêl**, bav**hêl**, kur**hêl**, keç**hêl**

**-hilgir** : Paşgira ji lêkera ”hilgirtin”ê ye û maneya “kesê / tiştê ku bi karê hilgirtin û rakirinê radibe” dide peyvê.

Nimûne:bar**hilgir**

**-hingêv** : Paşgira ji lêkera ”hingaftin”ê ye û maneya “kesê / tiştê ku bi karê hingaftinê radibe” dide peyvê.

Nimûne: şûr**hingêv**, rim**hingêv**, tîr**hingêv**, derb**hingêv**, dar**hingêv**

**-hî /-yî :** bnr > **-ahî**

**-ik** (I) : Pirtika ji bo piçûkkirina ji ber xweşik û narînnîşandanê ye.

Nimûne: keç**ik**, qîz**ik**, law**ik**, kur**ik**, pîr**ik**, jin**ik**, mêr**ik**, pit**ik**, bav**ik**, kal**ik**, reş**ik**, zer**ik**, sor**ik**, gewr**ik**, rind**ik**, xweş**ik**, cewr**ik**, qird**ik**, berx**ik**, kar**ik** /kehrik,

**-ik** (II) : Pirtika ji bo navên tişt, hacet û alavan e.

Nimûne: dev**ik**, dest**ik**, lep**ik**, berçav**ik**, ker**ik**, pif**ik**, pir**ik**, bêr**ik**, ber**ik**, pal**ik**, çoç**ik**, hest**ik**, gir**ik**, boç**ik**, elb**ik**, kinc**ik**, kox**ik**, sîr**ik**, qirş**ik**, ref**ik**, piz**ik**, rêç**ik**, şim**ik**, zend**ik**

**-ik** (III): Pirtika ji bo navên hin xwarinan e.

Nimûne: av**ik** / afik, tirş**ik**, dolm**ik**, lor**ik**, çolik, xilor**ik**, kilor**ik**, nan**ik**, pel**ik**

**-ik** (IV): Pirtika ji bo navên hin nexweşîyan e.

Nimûne: zer**ik**, sor**ik**, xur**ik**, kux**ik**, xeneqût**ik**, bûk**ik**, efn**ik**, kuf**ik**, kam**ik**

**-ikî** : Navdêrê abstrakt ya nexweşîyan e yan jî tişt û mirovê bi wê nexweşîyê ketîye.

Nimûne: zer**ikî**, efn**ikî**, vir**ikî**, kuf**ikî**, kam**ikî**, kas**ikî**

**-il** : Navê cihekî nîşan dide.

Nimûne: paş**il**, pêş**il**, zeng**il**, xwaz**il** (xwazî), paxil

**-inc** : sar**inc**, gaz**inc**

**-incî** : nav**incî**

**-ing / -ng / -wing** : Pirtika ji bo piçûkkirina ji ber xweşik û narînnîşandanê ye.

Nimûne: roj**ing**, ar**ing**, sor**ing**, xwey**ing**, poş**ing**, rê**wing** / rêwingî, bira**ng**, çîya**ng**

**-king** : Pirtikeke cotpiçûkkirinê ye, tiştan du caran li ser hev piçûk dike. Ev pirtik jî her ji bo piçûkkirina ji ber xweşik û narînnîşandanê ye.

Nimûne: bira**king**, xwey**king**, day**king**

**-ino / -no / -nino** : Ji bo forma bangkirina zayenda hem mê û hem jî nêr ya piranîyê ye.

Nimûne: xortino! (xortno), keçino! (keçno), kurino! (kurno), gundîno! (gundînino)

**-istan / -stan** (I) : Bi maneya cih, dever û şûn e.

Nimûne: gor**istan**, gul**istan**, bo**stan** (bustan, bîstan), mûr**istan,** dar**istan**, çol**istan**, qûm**istan**, şar**istan** / şehr**istan**

**-istan** (II) : Bi maneya welat e.

Nimûne: Kurd**istan**, Afxan**istan**, Bulxar**istan**, Gurc**istan**

**-istan** (III) : Bi maneya dem û zeman e.

Nimûne: germ**istan** (havîn), ziv**istan**,

**-işk / -îşk/ -oşk** : germ**işk**, hevr**îşk**, kur**îşk**, nerm**oşk**

**-î/-yî** (I): Ev paşgira mensûbbûn û girêdana bi kom, eşîr, gel, netewe, ziman, zarava, devok, dîn yan jî mezhebekî nîşan dide.

Nimûne: samî, arî (aryanî), ertoşî, botî, milî, kurdî, erebî, almanî, kurmancî, lurî, alewî, êzîdî, behayî, îslamî, henifî, şafi’î, caferî, isma’îlî, evangalî, lûterî

**-î/-yî** (II): Mensûbbûn û girêdana bi cih, dever, herêm, gund, bajar û welatekî nîşan dide.

Nimûne: deşt**î**, çîya**yî**, gund**î**, bajar**î**, zozan**î**, serhed**î**, behdîn**î**, diyarbekr**î**, wan**î**, mêrdîn**î**, kurdistan**î**, îraq**î**, afrîka**yî**, asya**yî**. dever**î**

**-î/-yî** (III): Ji rengdêrekê navdêreke abstrakt (mucered) çêdike.

Nimûne: sor**î**, zer**î**, boz**î**, qenc**î**, sar**î**, germ**î**, çê**yî**, sist**î**. qelew**î**, reş**î**

**-î/-yî** (IV): Ji rengdêr yan jî ji navdêrekê navdêreke abstrakt çêdike.

Nimûne: camêr**î**, azad**î**, serbest**î**, tolaz**î**, serxweş**î**, rast**î**, dost**î**, nezan**î**, paqij**î**

**-î/-yî** (V): Ji navê kar û pêşeyekê navdêreke abstrakt çêdike û mijûlahîyekê nîşan dide.

Nimûne: karker**î**, zîvker**î**, cotkar**î**, gulfiroş**î**, bikirr**î**, dengbêj**î**

**-î/-yî** (VI): Ji navdêrekê ku dem nîşan dide navdêreke nû ji bo peryodeke taybetî çêdike.

Nimûne: roj**î**, sêmeh**î**, nîvsal**î**, hefte**yî**, havîn**î**, payîz**î**, zivistan**î**.

**-î** (VII): Ji navdêran rengdêr çêdike.

Nimûne: av**î**, bej**î**, xwîn**î**, beng**î**

**-î** (VIII): Ji rengdêran navdêrên konkret çêdike.

Nimûne: şil**î**, gêrm**î**, germ**î**

**-î** (IX): Ji navdêran navdêrên nû yên di maneya alav û tiştekî ne çêdike.

Nimûne: baran**î**, dest**î**, der**î**, pişt**î**, gul**î**

**-î** (X): Ji hokeran navdêr çêdike.

Nimûne: bin**î**, ser**î**, nîv**î**

**-î/-yî** (XI): Ji çi yan jî ji çi madenê çêbûna tiştekî nîşan dide.

Nimûne: hesin**î**, sifir**î**, pola**yî**, zîv**î**

**-îfk** : bal**îfk**, gul**îfk**

**-îk** : xur**îk**, qid**îk**, xidxid**îk**

**-în** (I) : Ji çi yan jî ji çi madenê çêbûna tiştekî nîşan dide.

Nimûne: zêr**în**, zîv**în**, dar**în**, derew**în**, rast**în**

**-în** (II) : Ji navdêran rengdêr çêdike.

Nimûne: reng**în**, zeng**în**, belg**în**, ah**în**, gurg**în**, beng**în**, deng**în**, şerm**în**, nal**în**, dil**în**

**-în** (III) : Ji navdêran navdêreke nû çêdike.

Nimûne: berf**în**, tirş**în**, roj**în**

**-în** (IV) : Ev paşgir ji hokerekê hokereke nû çêdike.

Nimûne: pêşîn, paşîn, dawîn, jêrîn, jorîn, navîn,

**-îne** : Ji navdêran navdêreke nû çêdike.

Nimûne: çar**îne**, yek**îne**, pêş**îne**

**-înî** (I) : Ji çi yan jî ji çi madenê çêbûna tiştekî nîşan dide.

Nimûne: dar**înî**, zîv**înî**, zêr**înî**

**-înî /-yînî** : Ev paşgir ji navdêrekê navdêrên nû yên abstrakt çêdike.

Nimûne: kurd**înî**, pîr**înî**, dê**yînî**, bav**înî**, heval**înî**, dost**înî**, beng**înî**, mêr**înî**, kur**înî**, keç**înî**, bûk**înî**, law**înî**

**-înok** : Ev paşgir maneya ”kesê ku bi wî karî radibe, wî karî dike” dide peyva nû.

Nimûne: xap**înok**, çiv**înok**

**-îş / -iş** : Ev paşgir ji navdêran navdêreke nû çêdike û maneya ”karê ku tête kirin” dide peyva nû.

Nimûne: bexş**îş**, spar**iş**

**-îtî /-yîtî** : Ev paşgir ji navdêrekê navdêrên nû yên abstrakt çêdike.

Nimûne: ker**îtî**, bav**îtî**, gund**îtî**, mîr**îtî**, dê**yîtî**, se**yîtî**

**-îtik** : banger**îtik**

**-îyan** : Ji rengdêrekê navdêreke nû, ku di maneya cih û deverê de ye dide peyvê.

Nimûne: germ**îyan**

**-jen** (I): Ji lêkera ”jenîn, jendin”ê ya bi maneya lêdanê de ye. Wek paşgir maneya ”kesê yan jî tiştê ku karê lêdana wî tiştî dike” dide peyva nû.

Nimûne: kevan**jen**, av**jen**, ba**jen**, agir**jen**, liva**jen**, libû**jen**, keman**jen**

**-jen** (II): Ji lêkera ”jenîn”ê ya bi maneya ”dîwardanîn”ê de, wek paşgir ”kesê ku bi wî karî radibe” dide peyvê.

Nimûne: dîwar**jen**

**-jimêr** : Paşgira ji lêkera ″hejmartin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê hejmartinê radibe″ dide peyvê.

Nimûne: demjimêr (alava ku demê dihejmêre, kronomêtre)

**-k** (I) : Pirtika ji bo piçûkkirina ji ber xweşik û narînnîşandanê ye.

Nimûne:qûtî**k**, pîr**k**, nêrî**k**, kanî**k**, çêlî**k**, kurî**k**, cênî**k**, cêwî**k**, sêwî**k**, kevçî**k**, co**k** /cihok,

**-k** (II) : Pirtika ji bo navên tişt, hacet û alavan e.

Nimûne:daralîn**k**, cerîf**k**, bermal**k**, binmil**k**

**-ka** : qestî**ka**, qazî**ka**, zû**ka**, xwezî**ka**, hêdî**ka**, dizî**ka**

**-kanî** / **-(i)kantî** : Bi alîkarîya vê paşgirê ji navdêrekê peyveke nû ku êdî hoker e, çêdibe û maneya "bi awayê... , bi tehrê..." dide peyvê.

Nimûne: keç**kanî** / keç**kantî** / keç**ikantî**, law**kanî** / law**kantî** / law**ikantî**, jin**kanî** / jin**kantî** / jin**ikantî**, mêr**kanî** / mêr**kantî** / mêr**ikantî-ke** : binke

**-kî** (I): Maneya ″wek, mîna, fena, şitî, şubhê″ dide peyvê û wê dike hoker.

Nimûne: fileh**kî** (file**kî**), kurd**kî**, kurmanc**kî**, alman**kî**, ecem**kî**, ereb**kî**, mirtib**kî**, gundî**kî**, bajarî**kî**, axa**kî**, mêran**kî**, nivîs**kî**, dev**kî**, qeşmer**kî**, serser**kî**, qeşmer**kî**, hêk**kî**

**-kî** (II): Hokera dem û zemanan çêdike û maneya ″di dema (wexta)... de″ dide peyvê.

Nimûne: nîvro**kî**, êvar**kî**, 'esir**kî**

**-kar** : Ji gotina kar e û vê xeysetê dide maneya peyvê.

Nimûne: cot**kar**, xwende**kar**, koş**kar**, xebat**kar**, sexte**kar**, hîle**kar**, xizmet**kar**, guneh**kar**, minê**kar**, alî**kar** / arîkar, zîyan**kar**, rîya**kar**, nîve**kar**, sitem**kar**, zulm**kar**, derew**kar**

**-karî** : Ev paşgir ji navdêran navdêreke nû ya abstrakt diafirîne.

Nimûne: dest**karî**

**-keft** : Paşgira ji lêkera ″ketin / keftin″ê ye û maneya kesê / tiştê ku bi karê keftinê radibe dide peyvê. Lêkera "ketin"ê di devokên wek behdînî û hinekên botî de ne wek "ketin" lê wek awayê xwe yê kevn "keftin" tête gotin.

Nimûne: dest**keft**

**-ker** : Ev paşgir awayekî din ya paşgira "kar" e. Her bi maneya "kesê / tiştê ku bi wî karî radibe" dide peyva nû.

Nimûne: zîv**ker**, kar**ker**, zêr**ker**, xebat**ker**, hesin**ker**

**-kil** : Paşgira ji lêkera ″kilîn, (kilandin, kil kirin)″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kilandinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: dew**kil**

**-kir** : Paşgira ji lêkera "kirin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kilandinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: dest**kir**, mal**kir**, kar**kir**, şuxul**kir**

**-kirr** : Paşgira ji lêkera ″kirîn″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kirînê radibe" dide peyvê.

Nimûne: bi**kirr**

**-kêş** (I): Paşgira ji lêkera ″kêşan / kişandin (kaş kirin)″a barekî ye û maneya "kesê ku bi wî kar û pêşeyî radibe" dide peyvê.

Nimûne: av**kêş**, bar**kêş**, kêlindî**kêş** (= tirpan**kêş**)

**-kêş** (II): Paşgira ji lêkera ″kêşan / kişandin″a tiştekî bi dûman e û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kişandinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: afyon**kêş**, cigare**kêş**, qelûn**kêş**, tiryak**kêş**, hewa**kêş** / ba**kêş**, mîx**kêş**

**-kêş** (III): Paşgira ji lêkera ″kêşan / kişandin″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku ji alîyê manewî ve xwe dide ber wî karî" dide peyvê.

Nimûne: cefa**kêş**, ser**kêş**, zîyan**kêş**, zehmet**kêş**, şûr**kêş**, dil**kêş**, bal**kêş**

**-kêş** (IV) : Paşgira ji lêkera ″ kêşan / kişandin″ê ya ji bo wezinandinê ye û maneya "giranî"yê dide peyvê.

Nimûne: ta**kêş**

**-koj** : Paşgira ji lêkera ″kotin″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kotinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: hestî**koj**

**-kuj** : Paşgira ji lêkera ″kuştin″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kuştinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: mêr**kuj**, spî**kuj**, mêş**kuj**, agir**kuj**, dest**kuj**, bi**kuj**, xwe**kuj**, karwan**kuj**

**-kut** : Paşgira ji lêkera ″kutan / qutan″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê kutanê radibe" dide peyvê.

Nimûne: mîr**kut** /mê**kut** /mî**kut**, dan**kut**, sîr**kut**, ba**kut**, dar**kut**, ban**kut**

**-ko** : Ev paşgir carina ji bo xweşikkirinê û carina jî ji bo piçûkxistina kesan ya di dema rewşa gazîkirinê de tête bi kar anîn.

Nimûne: Hemed**ko**, Cemîl**ko**, Resûl**ko**, muxtar**ko**, malxirab**ko**, reben**ko**

**-kok** (I) : Ev paşgir ji bo piçûkxistin û sivikahîpêkirinê ye.

Nimûne: jin**kok**, mêr**kok**

**-kok** (II) : Ev paşgir ji bo piçûkkirina ji ber xweşik û narînbûnê ye. Ji rengdêr yan jî navdêran rengdêrek tête çêkirin.

Nimûne: fedî**kok**, xweş**kok**, keç**kok**, reş**kok**

**-kokî** : Ji rengdêran rengdêreke nû tête çêkirin.

Nimûne: kevin**kokî**, pembe**kokî**, reş**kokî**, zer**kokî**, şîn**kokî**,

**-kolî** : Ji lêkera "kolîn, kolandin"ê ye û paşgira didwan "î" lê hatîye zêde kirin û maneya "kesê bi karê kolandinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: pê**kolî** (pî**kolî**)

**-lok** : Ev paşgira han heye ku ji lêkera "(dev) lê kirin"ê kurt bûbe.

Nimûne: dev**lok**

**-mal** : Paşgira ji lêkera ″malîn / maliştin″ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê malînê radibe" dide peyvê.

Nimûne: dest**mal**, pêşte**mal** / pêşmal

**-man** / **-iman**: Bi maneya ″cih″ e. Di zimanê pehlewî de bi maneya ″xanî, sera″ de bû.

Nimûne: nîşti**man**, xani**man**

**-mend** : Paşgirek e ku di maneya ″heyî, heye, xwedî″ de ye. Tête dawîya navdêran.

Nimûne: dewle(t)**mend**, huner**mend**, bawer**mend**, aqil**mend** (eqilmend), şêwir**mend**, kar**mend**

**-mêj** / **-mij** : Paşgira ji lêkera ″mêtin, mêhtin / miştin″ê ye û maneya ″kesê / tiştê ku bi karê mêtinê radibe″ dide peyvê.

Nimûne: xwîn**mêj** (xwînmij), şîr**mêj** (şîrmij), mar**mêj** (marmij)

**-nak** : Paşgirek e ku maneya "bi, tijî, tijî bi, bi ... dagirtî" dide peyvê.

Nimûne: xem**nak**, xeter**nak**, derd**nak**, tirs**nak**

**-nas** (I) : Paşgira ji lêkera ″nasîn″ê ya bergindî "'ilm, zanist, zanîn"ê ye. Gava ku tête dawîya navdêran maneya "kesê ku bi wê zanistê mijûl dibe" dide peyvê.

Nimûne: ziman**nas**, stêr**nas**, dîrok**nas**, rojhilat**nas**, aborî**nas**

**-nas** (II) : Paşgira ji lêkera ″nasîn, (nas kirin)″ê ye û maneya "kesê ku bi karê naskirinê radibe" dide peyvê.

Nimûne: xwedê**nas**, kêm**nas**, çav**nas**, rê**nas**

**-nasî** : Ev paşgira hevedudanî ye û ji paşgirên "-nas" û "-î"yê pêk hatîye. Wek di paşgira "-î"yê de jî hatîye behs kirin, bi alîkarîya vê navdêrên abstrakt têne çêkirin. Ji ber ku paşgira **"nasî"** xwedî taybetmendîya bi navkirina zanistan e, ango navê 'ilm û zanistekê bi me dide zanîn, çêtir e ku ev bi tena serê xwe li vir cih bigire. Bi vî awayî em bizanibin ku ev paşgir ji bo çêkirina navên zanistan e.

Nimûne: ziman**nasî**, stêr**nasî**, dîrok**nasî**, civat**nasî**, rojhilat**nasî**

**-nêr** : Paşgira ji lêkera "nihêrîn / nêrîn"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê nihêrînê radibe" dide peyvê.

Nimûne: nexweş**nêr**, çav**nêr** (çavnihêr), zarok**nêr**

**-nişîn** : Paşgira ji lêkera "niştin, nişîn"ê ye û maneya "cihê ku ew kes lê rûniştîye" dide peyvê.

Nimûne: kurd**nişîn**, mîr**nişîn**, şah**nişîn**

**-nivîs** : Paşgira ji lêkera "nivîsîn / nivîsandin"ê ye û maneya "kesê / tiştê ku bi karê nivîsînê radibe" dide peyvê.

Nimûne: destnivîs, xweş**nivîs**, rast**nivîs**, çîrok**nivîs**, ser**nivîs**, reş**nivîs.**

KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du Bulletin de liaison et d'information
N° C.P. : 65913 A.S.


106, rue La Fayette, 75010 Paris - France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64
*www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* **Reşo ZÎLAN**, *Réalisation :* **S. ILITCH & M. HASSAN**